Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 92
31'ê Tîrmehê
Buha: 150 Tûmen



Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## PDK Îranê Bersiva Gefên Murad Karayîlan Da

"Em hêvîdar in û xweziya me ye ku PKK ji bo carekê jî bûye, bîr li alîkarî û dostînî bi hêzên Kurdistanî re bike û zimanê gefxwarinên wê rû li hikûmetên zal û desthilatdar bi ser Kurdistanê de be"

R. 4



# LI ÎRANÊ, TENÊ DI ROJEKÊ DE, 29 KES HATIN DALIQANDIN



Roja yekşem, 27.07.2008'an, di kiryareke bêmînak de, 29 kes li Tehranê hatin daliqandin. Hate ragihandin ku kesên îdamkirî bi buxtana qaçaxa madeyên sirker û kuştinê hatibûn mehkûmkirin!

Lê tê gotin ku kesên daliqandî, ji wan kesan bûn ku di sala borî de nerazîbûna xwe derheq pişikkirina benzînê li Îranê, xuya kiribûn.

Îdamkirina bikom a xelkê Îranê di çend salên borî de bê mînak bûye û tê gotin rejîma Îranê bona çavtirsandina xelkê û pêkanîna rewş û zirûfa tirsê, daliqandinên han birêve dibe. Her wiha hate zanîn ku Nasir Mihemedî, temen 45 salî û xelkê bajarê Kamyaranê ku bi buxtana kuştina endamekî hêzên ewlekarî ên rejîmê hatibû tawanbarkirin, piştî derbazkirina 2 salan di girtîgehê de, bi tawana "Muharibe"(Şer tevî Xwedê) roja 27.07.2008'an, li derdora zîndana navendî a bajarê Sine, hate daliqandin. Di çend rojên borî de li Urmiyê jî 3 girtî hatin daliqandin. Roja 29.07.2008'an, 3 kesên din li Îranê hatin îdamkirin.

Karnameya van sê dehsalên desthilatdariya Komara Îslamî a Îranê nîşan daye ku Îranê yek ji dewranên herî bixwîn ên xwe derbaz kiriye. Berdevkê Federasyona Navneteweyî a Komeleyên Mafên Mirovan, **Ebdulkerîm Lahîcî**, got ku Îran piştî Çînê welatê duyemîn yê cîhanê ye ku herî zêde mirov îdam kirine. Lahîcî diyar kir ku îdamkirina 30 kesan di rojekê de, vê yekê dide xuyakirin ku rejîma desthilatdar li Îranê dixwaze bona parastina desthilatê, xelkê bitirsîne û bi awayekî berfireh tirs û xof di nav civakê de peyda bibe.

Biryara îdamê bi ser çend çalakên sivîl û rojnamevanên Kurd li Îranê hatiye birrîn û ew li benda îdamê ne.

**Bona Betalkirina Biryara Îdamkirina Ferzad Kemanger**

## Li Bajarên Kurdistanê Meşên Aştîxwazane Hatin Lidarxistin



Piştî ku biryara îdamkirina mamostayê dibistanê yê Kamyaranê, Ferzad Kemanger û 2 hevalên wî ji aliyê Dîwana Bilind ya Komara Îslamî hate pejirandin, li bajarên Rojhilatê Kurdistanê bi awayên cur bi cur nerazîbûn hate nîşandan û gel daxwaza betalkirina biryara daliqandina Ferzad û girtiyên din ên Kurd dikin ku cezayê dardekirinê xwarine.

Bona vê yekê, Komek ji xelkê bajarê Mehabadê, sibêdeya roja înê, 25.07.2008'an, di meşeke aştîxwazane de, daxwaza betalkirina biryara îdamkirina Ferzad Kemanger, kirin. Beşdarên meşa han, di meydana Çarçira de kom bûn û bi hilgirtina pilakard û wêneyê Ferzad Kemanger, meşeke aştîxwazane birêve birin. Li bajarê Sine û Kamyaranê jî meşên ji bo betalkirina biryara na rewa a îdamkirina Ferzad Kemanger hatin lidarxistin.

Kampyaneke berfireh, ji aliyê çalakên sivîl, rojnamevan, nivîskar, sazî û NGO'yên ne dewletî û parêzerên mafên mirovan û wd... hatiye destpêkirin û bona vê yekê dixebitin. Partiyên siyasî yên Kurd ên Rojhilatê Kurdistanê jî li hember vê biryara ne heq û ne adîlane a Komara Îslamî bi xurtî û berfirehî dixebitin.

# Daxuyaniya Deftera Siyasî A PDK Îranê Derheq Girtina Beşdarên Gireva Girseyî Û Berfireh A 22'ê Pûşperê

**Hevwelatiyên hêja!**
**Xelkê berxweder yê Kurdistanê!**

Piştî ku civatên xelkê Kurdistanê bersiva erê dan bengawaza PDK Îranê û di roja 22'ê Pûşpera îsal(12.07.2008)'an, nozdehemîn salvegera terorkirina Dr. Qasmilo de, bi daxistina dikan û bazarên bajaran û temirandina çirayên malan di dema diyarîkirî de, belavkirina berfireh a tirakt û dirûşmên taybet bi vê hencetê, mehkûm û şermezarkirina terorîzma Komara Îslamî a Îranê û xuyakirina soz û wefadariyê ji bo rêbaza Dr. Qasmilo û PDK Îranê, rejîma Komara Îslamî ji berê zêdetir yê dest dayiye kiryarên çewt û qirêj û dijî mirovî derheq xelkê Kurdistanê û pêvajoya girtin û tepeserkirin û azar û êşandina xelkê berfirehtir kiriye. Li bajarê Bokanê bêtirî 60 kes ji xelkê wî bajarê Kurdistanê hatine girtin û ji girtîgeha ewlekarî ya wî bajarî an ya Urmiyê re hatine şandin ku tu nûçe û agahiyek li ser çarenivîsa wan tune ye.




Li bajarê Şinoyê, bêtirî 150 dikan û li bajarê Pîranşarê jî zêdetirî 50 dukan ji aliyê hêzên kirêgirtî ên rejîmê ve hatine pilompkirin, 30 kes hatine girtin û ji 18 dikandaran re rehîna 30 heta 35 milyon tûmenî hatiye wergirtin û qirar e bên dadgehîkirin. Li gundên herêma Sindos ser bi bajarê Nexedeyê, hêzên rejîma Komara Îslamî êrîş kirin ser malê xelkê û dezgehên satelîtan kom kirine. Her di vê derbarê de çekdarên rejîmê, êrîş birin ser gundê Xweşderê ser bi devera Serşîw a Seqizê û gef ji xelkê xwarine û gellek bêhurmetî jî bi xelkê kirine, bi vê hêcet û mihaneyê ku li ser dîwarên malên wan dirûşm, hatine nivîsîn.

Rengê vê hindê dide ku ev rewşa serkut, zext û îşkenceyan ku rejîma Komara Îslamî bo ser xelkê girtiye ber xwe, di rojên pêş de jî dê dom bike. Di heman demê de, berxwedan, yekîtî û yekdengiya xelkê bajar û navçên Kurdistanê cihê rêz û pêzanînê ye.

Derbarê vê liv û riftara dijî mirovane a rejîma Komara Îslamî a Îranê, em daxwazê ji kom û komeleyên alîgirê mafê mirovan dikin ku vê liv û tevgeriyana rejîmê mehkûm bikin û dengê xwe bilind bikin da ku rejîma Komara Îslamî ji encamdana wan cure liv û lebatane xwe biparêze.

Bêdengî li hember rejîma dijî gelî a Komara Îslamî a Îranê dibe sedema vê çendê ku rejîm ji domkirina dîktatorî û serberedayîbûnê û azar û êşandina xelkê destvekirîtir tevbigere û pêvajoya serkutan xurtrir bike.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**16.07.2008**
**26.04.1387**

**Daxuyaniya Çapemeniyê:**

# Girtin Û Binçavkirina Dehan Kes Ji Xelkê Kurdistanê Piştî Girevgirtina Seranserî A 22'ê Pûşperê

Dehan kes ji xelkê Kurdistanê piştî girevgirtina seranserî bi henceta 22'ê Pûşperê, 19'hemîn salvegera terorkirina Dr. Ebdulrehman Qasimlo, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve hatine girtin û binçavkirin. Di heyamê du rojên borî de, tenê li bajarê Bokanê 86 kes hatine girtin ku beşek ji wan ji girtîgehên Miyanduav û Urmiyê re hatine şandin. Herwiha Komara Îslamî a Îranê dest yê daye komkirina berfireh a Sêl(Dish)ên Satelîtan û bi sedan antînên Satelîtan li bajarên Kurdistanê hatine komkirin.

Hêzên Întîzamî ên Komara Îslamî a Îranê li bajarên Pîranşar û Şinoyê deriyê sedan dikanan pilomp kirin û bi kiryar û piratîk jiyana asayî a xelkê di warê aborî de asteng kirine û bi vê yekê xelkê Kurdistanê ber bi dijwarî û astengiyên berfirehtir ên aborî rakişandiye. Di roja 12'ê Tîrmeha 2008'an, xelkê bajarên Rojhilatê Kurdistanê bi henceta bîranîna 19'hemîn salvegera terorkirina rêberê Kurd, Dr. Ebdulrehman Qasimlo û mehkûm û şermezarkirina terora dewletî a Komara Îslamî a Îranê, girevek giştî û seranserî pêk anîn. Piraniya herî zêde a dikan û bazarên gund û bajarên Kurdistana Îranê daxistî bûn û xelkê hatin û çûn nedikir. Di heman şevê de, xelkê Kurdistanê ji bo şermezarkirina terorîzma Komara Îslamî a Îranê, li seet 22'ê bo dema sê deqîqeyan çirayên malên xwe temirandin.




Rêberê Kurd, Dr. Ebdulrehman Qasimlo, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, di roja 13.07.1989'an de, li bajarê Viyen, paytexta Otrîşê ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve tevî du hevalên xwe, heval Ebdula Qadirî Azer, endamê Komîteya Navendî û nûnerê partiyê li derveyî welat û Dr. Fazil Resûl, mamostayê Zanîngehê û Kurdê akinciyê Awusturyayê hatin terorkirin. Dr. Qasimlo bi armanca gotûbêj bona çareserkirina pirsa Kurd li Îranê ji bo civînekê hatibû vexwendin ku di vê civînê de ji aliyê nûnerên Komara Îslamî a Îranê ve hate terorkirin.

PDK Îranê nigeranê çarenivîsa girtiyan û liv û serederiya hov û dirindane a Komara Îslamî a Îranê tevî wan û îşkence û daliqandina girtiyên han e. Lewra em daxwazê ji civata navneteweyî dikin, hemû hêz û şiyana xwe ji bo azadî û serbestberdana her çiqas bilez a girtiyan û dawîanîn bi pêvajoya xurt ya serkut û çewisandina xelkê Kurdistanê ji aliyê rejîma Komara Îslamî a Îranê ve bikar bînin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Nûneriya Derveyî Welat**
**Parîs, 16.07.2008**

# Daxuyaniya PDK Îranê Derheq Gefxwarinên Vê Dawiyê Ên Murad Karayilan, Endamê Serokatiya PKK'ê

**Hevwelatiyên hêja!**
**Xelkê azadîxwaz yê Kurdistanê!**

Piştî ew liv û tevgera berfireh a nerazîbûnê ku bi henceta 19'hemîn salvegera terorkirina **Dr. Qasimlo** di 22'ê Pûşpera îsal (12.07.2008)de û li ser bangewaza PDK Îranê ji aliyê civatên xelkê Kurdistanê ve hate lidarxistin, rejîm û dem û dezgehên serkutker ên wê di heman demê de ku ji yekîtî û yekdengiya xelkê û vê tevgera bêmînak gêj û hêr mabûn, dest dan pîlangeran li dijî xelkê û ji aliyekê bi şopandin, girtin û îşkencekirina keç û xortên gelê Kurd bi awayên cur bi cur tundtir û berfirehtir kir û ji aliyê din ve jî li dijî PDK Îranê ketin pîlangêrandinê. Ewana hemû ji Komara Îslamî a Îranê dihatin çavnihêrîkirin, lê ewa di vê derbarê de ecêb û balkêş bû, hevpeyvîna ji nişkê ve ya **Murad Karayilan**, endamê serokatiya PKK'ê tevî televîzyona "NEWROZ" Tayê kanala ragihandina PKK'ê di bervara 17.07.2008'an de bû ku ji rêya wê televîzyonê ve hate weşandin.

Awa û dema hevpeyvîna han, ew gumane ji temaşavanan re pêk dianî ku neke PKK jî weke Komara Îslamî ji wê liv û




tevgera hevgirtiyane a xelkê hêrs, tûre û nerazî be û di vê derbarê de tevî Komara Îslamî a Îranê hevterîb be, nemaze ku helwêstên bi vî awayî ên PKK'ê li dijî hevgirtin û yekîtiya gelê Kurd di Rojhilatê Kurdistanê de di serhildana 3'ê Reşemeya 1377(1998)'an de jî hatibû dîtin.

Ji tev aliyekê re eşkere ye ku PKK bi her destkevteke Kurdan nerehet û xemnak e, heke di bin rêberî û hejmoniya xwe de nebe, lê hewce ye ew partiye bizanibe dema gefxwarin, tilî raweşandin û çavzilkirin ji vî û wê derbaz bûye, bi taybet partiya xweştevî û berdilê gelê Kurd, Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê.

Di wê derbarê de, em weke PDK Îranê ji serokatiya PKK'ê re radigihînin ku PDK Îranê ji buxtan û tometlêdan û kifşkirina hinek liv û hereketên PKK'ê û ta û beşên wê bi tu awayî pêşgav nebûye û hewl û cehda xwe daye ku komplo û pîlanên dijminan bona li hember hevragirtina hêzên Kurdî serkevtî nebe, lê heke PKK di vê derheqê de bixwaze van liv û tevgerên ne dostane ên xwe ku bi dirêjahiya salên borî derheq hemû hêzên siyasî ên tev parçeyên Kurdistanê girtiye pêşberî xwe, bidomîne, dê PDKÎ neçar bimîne bersiv û rohnkirina xelkê derbarê liv û tevger û siyasetên PKK'ê û ta û şaxeyên wê bide.

Em hêvîdar in û xweziya me ye ku PKK ji bo carekê jî bûye, bîr li alîkarî û dostînî bi hêzên Kurdistanî re bike û zimanê gefxwarinên wê rû li hikûmetên zal û desthilatdar bi ser Kurdistanê de be.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekretariyet**
**23.07.2008**
**02.05.1387**

## Nameya "Loyis Ayala" Ji Bo Mistefa Hicrî, Derheq Jordeçûna Pileya Endametiya PDK Îranê Di "IS"yê De

**Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê!**
**Hevalê rêzdar!**

Ji vê rêyê ve eva tê pejirandin ku pileya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di Enternasyonala Sosyalîst de, li gor biryara pejirandî a 23'hemîn kongireya "SI"ê ku ji roja 30.06.2008'an, heya 02.07.2008'an, di Aten, peytextê Yûnanê de birêve çû, bi piraniya dengan ji endamê çavdêr ve bo endamê Ravêjkar hate bilindkirin.

Domandina hevkariya partiya we bona dabînkirina perensîb û armancên hevbeş, bo min cihê keyfxweşiyê ye.

Daxwazê dikim, silavên min yên germ û birayane bipejirînin.



**"Loyis Ayala", Sekreterê Gitşî yê Enternasyonala Sosyalîst**
**Deftera Enternasyonala Sosyalîst**
**London**
**09.07.2008**

## Nameya Rêzdar Mistefa Hicrî, Ji Bo Loyîs Ayala, Sekreterê Giştî Yê "IS"yê

**Birêz "Loyis Ayala", Sekreterê Giştî yê Enternasyonala Sosyalîst**
**Silav û rêz!**

Nameya cenabê te derheq pejirandina jordeçûna pileya endametiya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ji bo endamê ravêjkar, di 23'hemîn kongireya Enternasyonala Sosyalîst de gihîşte destê min.

Bi vê hincetê ez sipasiya cenabê te yê rêzdar û Enternasyonala Sosyalîst dikim ku we rûmet û şanaziya han bexşande partiya me.

Bêşik karê han dibe haydereke bihêz bona domandina xebata me di çarçoveya pirensîpên Enternasyonala Sosyalîst de.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**



**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**20.07.2008**

## Şandeke Rêkevtina Demokratîk A Kurdên Sûriyê, Serdana PDK Îranê Kir

Roja şemî, 19.07.2008'an, şandeke Rêkevtina Demokratîk a Kurdên Sûriyê(El Wefaq) bi serokatiya



**Fewzî Şengel**, Kargêrê Giştî yê saziya han, serdana binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê kir û ji aliyê şandek bi serokatiya **Mistefa Hicrî**, Sekreterê Giştî yê vê partiyê ve bi germî hate pêşwazîkirin.

Di hevdîtina navbera her du aliyan de, rewşa devera Rojhilata Navîn, doza neteweya Kurd di Rojhilat û Rojavayê Kurdistanê hate berbas û bîr û hizr li ser vê pirsê bi hevdu re guhartin.

Di dawiyê de her du aliyan li ser berfirehkirina pêwendiyên di navbera hevdu de tekez kirin.

# Dr. Qasimlo: Serokekî Rewşenbîr Û Demokratê Civakî….

***Dr. Qasimlo beriya 19 salan ji aliyê Komara Îslamî de bi qeleşî û bêbextî hat şehîd kirin.***

Dr. Ebdulrehman Qasimlo piştî îdamkirina Qazî Mihemed, serokekî Partiya Demokrat a Kurdistanê ya Îranê (PDK a Îranê) yê bi navûdeng e. Di sala 1979'an de dema ku li Îranê desthilatdariya siyasî bi riya "şoreşê" hat guhertin, desthilatdariya Şahê dîktator û hevalbendê Amerîkayê hat hilweşandin, li ciyê wê Komara Îslamî û teokrat hat ava bû, navê Dr. Qasimlo hem serokekî PDK a Îranê û hem jî wek serokekî Kurdistanê derket pêş.

Dema ku di Îlona sala 1979'an de şerê pêşmergatî ya azadî û rizgariya Kurdistanê dest pê kir, her zarokekî kurd jî navê Dr. Qasimlo bihîst û jê re rêz girt.

Dr. Qasimlo entelektûel û zimanzanekî gelek baş bû. Wî, zimanên kurdî, farsî, tirkî, erebî, fransî, çekî, rûsî baş dizanî. Li ser zimanên din jî, wekî Almanî û zimanên slawî heta merheleyekê zanyare bû.

**Jiyana wî bi giştî…**

Gelek serkanî û bi taybetî jî serkaniyên PDK a Îranê diyar dikin ku Dr. Ebdulrehman Qasimlo di 22. 12. 1930'an de li bajarê Urmiyeyê hatiye dinyayê. Malbata wî dewlemend û xudanmilk bû. Ew lawê Mihemed Axayê Wisuq bû. Wî xwendina xwe ya destpêkê û navîn pêşî li Urmiyeyê dest pê dike, pişt re jî li Tehranê xwendina xwe dawî tîne.

Dema ku ew hîn di 11-12 saliya xwe de bûye, ji kurditî re eleqe nîşan dide. Di sala 1942'an de Komeleya Jiyaneweya Kurd ava dibe. Ji bona vê jî, baş tê fahmkirin ku Dr. Qasimlo di 11-12 salî ya xwe de çima ji siyaset û kurditî re eleqe nîşan daye.

Dr. Qasimlo dema ku 15 salî bûye, di sala 1945'an de li Urmiyeyê biavakirina **"Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistanê"** dest bi siyaseta xwe ya aktîf dike. Dema ku Komara Kurdistanê ya Mehabadê ava dibe, ew berpirsiyarekî tevger û rêxistina ciwanan e. Ji bona vê jî damezirandina Komara Kurdisatanê ji nêzîk de dişopîne, hîs dike, di nav beşên Komara Kurdistanê ya ciwanan eleqeder dike de cî digre. Dema ku avabûna Komarê tê îlankirin, ew jî ji bona xwendinê diçe Tehranê. Piştî ku li Tehranê xwendina xelas dike, ji bo xwendina dom bike, diçe Parîsê.

Piştî ku Komara Kurdistanê ya Mehabadê bi hevkariya hêzên rojava û xiyaneta Yekîtiyê Sovyetê têk çû, wî û gelek hevalên xwe xebata siyasî bi rengekî nihînî û berfireh dîsa dest pê dike. Pişt re ew dibe endamê PDK a Îranê. Dr. Qasimlo û hevalên wî di kar û xebatên xwe yên siyasî û rêxistinî de, ji Mîna Qazî ku wek dayika kurdan tê binavkirin, gelek alîkarî digrin.

**Dr. Qasimlo li Parîsê û Pragê…**

Dema ku Dr. Qasimlo digihîje Fransayê/Parîsê, di navbeyna xwendevanên zanîngeha Tehranê û Rejîma Şahî de şer pêk tê û li zanîngehê gelek xwendevan tên kuştin. Pişt re mixalefet û serîhildana civakî li hemû Îranê dest pê dike. Dr. Qasimlo û hevalên wî, hemû xwendevanên Îranê yên li Fransayê tevgereke protesto û rûreşkirinê organîze dikin, civîneke kîtlewî û girseyî pêk tînin. Dr Qasimlo di wê civînê de li dijî rejîma Şahê Îranê axavtineke gellek dûr û dirêj dike. Di civînê de biryar tê girtin ku nameyeke rûreşkirin û protestokirinê amade bikin, vê nameyê ji Şah re bişînin. Ev çalakî û xebata dibe sedem ku rejîma kolonyalîst, faşîst, dîktator bi riya balozxaneya xwe zorê li ser Dr. Qasimlo çêke û jiyana wî bikin xeteriyê.

Dema ku Dr. Qasimlo vê yekê tespît dike, herçiqas wek yekem bursiyerê Îranê yê **"Yekîtiya Navneteweyî a Xwendevanan"** be jî, dev ji Parîsê ber dide, diçe li payîtexta Çekoslovakyayê Pragê dibe rûniştvan.

Dr. Qasimlo beriya ku biçe Pragê, wî bi alîkariya çend xwendevanên Kurd, **"Civata Xwendevanên Kurd li Ewropayê"** ava dikin.

Dr. Qasimlo dema ku li Pragê dest bi xwendina xwe dike, di hemen dem de dibe endamê **"Yekîtiya Xwendavanên Navneteweyî"** û di nav yekîtiya navneteweyî de xebata xwe ya demokratîk, kurdî, enternasyonalî dimeşîne.

Dr. Qasimlo di sala 1951'an de li Pragê di Kongreya 2-êmin a **"Yekîtiya Xwendavanên Navneteweyî"** de dibe nûnerê xwendevanên Îranî di nav rêxistina navneteweyî de.

**Vegera wî ya Îranê û Îraqê…**

Dema ku di sala 1952'an de Hikumeta Dr. Musadiq desthilatdar dibe, Dr. Qasimlo jî Zanîngeha Pragê diqedîne û lîsansa zanista civakî û siyasî werdigre û vedigere Îranê.

Dr. Qasimlo piştî ku li hemberî hikumeta Dr. Musadiq darbeya leşkerî pêk tê, ew mecbûr dibe ku xwe veşirîne û jiyana xwe ya siyasî û rêxistinî bi tevayî nihînî bimeşîne. Wê demê li Kurdistanê û li Tehranê bi aktîfî beşdarî xebata PDK a Îranê dibe. Dîsa wê demê Dr. Qasimlo berpirsiyariya rojnameya Kurdistanê, Organa komîteya navendî ya partiyê dike. Di van şertan de, di bin serokatiya wî de, li sertaserê Kurdistanê û Îranê Komîteyeke Kard û xebatên Partiyê ava dibe.

Dr. Qasimlo piştî pênc salan, di sala 1957'an de dîsa vedigere Çekoslovakyayê. Di sala 1958-an de dema ku li Îraqê guhertina desthilatdarî dibe û Tevgera Kurdistanê ji nû ve radibe ser piya û xurt dibe; PDK a Îraqê legal dibe û Mela Mistefa Berzanî û hevalên wî ji Yekîtiya Sovyetê vedigerin Îraqê, Dr. Qasimlo û çend hevalên wî jî vedigerin Îraqê, dixwazin ku li Rojhilatê Kurdistanê û li Îranê tevgerê rêxin û bivejînin. Lê xuya ye ku terefên kurd jî tê de, çend teref ji karên wî û hevalên wî kêfxweş nebûn. Dewleta Îraqê biryar da ku ew ji Îraqê derkeve.

**Vegera wî ya Pragê…**

Dr. Qasimlo mecbûr dibe ku vegere Pragê. Dr. Qasimlo di sala 1962'an de li Zanîngeha Pragê doktoraya zanîstiya aborî digre û ew heta sala 1969'an li Zanîngeha Pragê dersa aboriya sermeyadarî, aboriya sosyalîstî dide. Di van şertan de, Dr. Qasimlo çend pirtûkan jî dinivîsîne. Pirtûka wî ya bi navûdeng, "Kurdistan û Kurd" e. Ji aliyê her kurdekî de tê zanîn. Li Tirkiyeyê jî beşekî vê pirtûkê çap bû.

Ev pirtûka ji aliyê Dr. Qasimlo de bi zimanê çekî hat nivîsandin, pişt re jî bi zimanên kurdî, îngilîzî, silowakî, lêhistanî, erebî; hinek beşên wê jî bi farisî hat çapkirin.

**Dr. Qasimlo û Yekîtiya Sovyetê…**

Dr. Qasimlo demokratekî civatî bû. Di destpêkê de nêzîkî rêjîm û îdeolojiya Yekîtiya Sovyetê bû. Lê dema ku Yekîtiya Sovyetê di sala 1968'an de vekirî êrîşî Çekoslovakyayê kir û Çekoslovakya dagir kir, li Çekoslovakyayê di bin serokatiya Dubçekî de tevgereke



**Îbrahîm GUÇLU**
**Amed, 15. 07. 2008**

li dijî dagirkariyê, Tevgera Biharê hat damezirandin, Dr. Qasimlo jî bû heval û dostê Dubçek û bû mixalîfê Yekîtiya Sovyetê.

**Dr. Qasimlo li Başûrê Kurdistanê…**

Dr. Qasimlo û çend hevalên xwe ji bona ku PDK a Îranê rakin ser piya û tevgerê li Rojhilatê Kurdistanê zindî bikin, ji Ewropayê vegeriyan Îraqê.

Dr. Qasimlo di konferansa 3'hemîn ya partiyê de (1971) bû endamê Komîteya Navendî û piştî wê jî bû sekreterê giştî yê partiyê.

Dr. Qasimlo, ji sala 1976'an heta sala 1978'an di di beşa ziman û bajarvaniya Kurdan de di zanîngeha Sorbonê li Parîsê mamoste bû. Wî di hemendem de di gelek rojname û kovarên Ewropayê de di derheqê pirsa Kurd û Kurdistanê, di derheqê jiyana siyasî, dîrokî, civakî ya kurdan de nivîsand; pirsa kurd û Kurdistanê bi reya giştî ya Ewropayê da nasandin.

Dr. Qasimlo li Ewropayê wek pisporekî pirsa Kurd û Kurdistanê, wek serkaniyeke pirsa Kurd û Kurdistanê dihat nasandin.

Piştî ku desthilatdariya Şah hat rûxandin û desthilatdariya nû kete destê hêza Îslamî, gelên Iranê li bendê bûn ku desthilatdariya Xumeynî ku ew jî, ji Parîsê vegeriya bû û bi Qasimlo ve xwediyê pêwendiyeke xurt bû, dê li Îranê reforma siyasî û civakî pêk bîne û demokrasiyê ava bike. li Kurdistanê jî Hukmî Zatî (OTONOMÎYÊ) qebûl bike. Neteweya kurd, faris, belûçî, azerî, ereb dê Îranê hevbeş birêve bibin. Hezar mixabin wusa nebû. Xumeynî û hevalên wî li ciyê dîktatoriya Şah, dîktatoriya xwe ava kirin.

Lê Kurdistan de facto azad bibû. Kurdistan di bin desthilatdariya PDK a Îranê û Komeleyê de bû, gelê kurd piştî serîhildana Simkoyê Şkak (1920-1930), avabûna Komara Kurdistanê ya Mehabadê (1946), careke din tahma azadiyê girtibû. Kurdan, nedixwestin ku dev ji azadiya xwe û ji desthilatdariya xwe berdin.

Xumeynî ku xwe wek rêberê cîhana îslamê dida nasandin, di 19'ê Tebaxa 1979'an de li dijî Kurdistanê şer û cîhad îlan kir.

Piştî ku Komara Îslamî bi hemû hêzên xwe û bi hemû awayên nemirovane dest bi êrîş û şer kir, PDK a Îranê, Komeleyê, Şêx Îzzeddîn Huseynî biryar dan ku gelê kurd û Kurdistanê biparêzin. Encama vê biryarê li hemû dever û herêmên Kurdistanê şerê peşmergatî dest pê kir, di demeke kurt de li hemberî hêzên dewletê serkeftî bûn û gelek herêmên Kurdistanê hatin azadkirin û li wan herêman desthilatdariya kurd hat avakirin. Şerê gelê rojhilatê Kurdistanê di demeke kurt de jî li dinyayê jî, deng da û giraniyeke siyasî çê kir.

Di navneteweyîbûna şerê Rojhilatê Kurdistanê de du sedem hebûn. **Yek sedemek,** şexsiyeta Dr. Qasimlo ya navneteweyî bû. **Sedema duyem jî,** qerektera rejîma Xumeynî ya îslamî ku li dijî Ewropayê, DYA-yê, Yekîtiya Sovyetê bû.

**Dr. Qasimlo û dewleta kurd îlan nekirin…**

Dr. Qasimlo refleksa serokbûna neteweyekî bindest nîşan da, teslîmî rejîma Xumeynî nebû û biryar da ku li hemberî Komara Îslamî şer bike. Ev helwesta wî ya pozîtîv bû.

**Lê hezar mixabin, piştî ev refleksa wî ya serokbûnê, gorî baweriya min ji wî helwesteka serokatiyeke din dihat xwestin. Piştî ku di navbeyna Komara Îslamî û gelê Kurdistanê de şer dest pê kir, di demeke kurt de, gellek herêmên Kurdistanê dîsa azad bûn û desthilatdariya kurdan ava bû. Hêzên kurdperwer bi ve yekê nîşan dan ku ew hêzên xurt in, ew li hemberî Komara Îslamî bedîl-alternatîfa desthilatdariya neteweyî ya Kurdistanê ne û dîsa diyar kiribûn ku dikarin li Kurdistanê desthilatdar bin, gelê Kurdistanê birêve bibin. Ev performansa hêz û rêxistinên Kurdistanê ji bo dinyayê gelek girîng bû. Dinya encama vê performansê li hêviya helwestek û biryareke din ya girîng bûn. Ev helwesta û biryara jî, îlankirina dewletbûna Kurdistanê bû.**

Ji bona vê du sedemên girîng hebûn. **Sedema yekem,** taybetiya rejîma Komara Îslamî û Xumeynî bû. Komara Îslamî dixwest ku hemû cîhana îslamî bixe bin bandor û desthilatdariya xwe, împaratoriyeke îslamî ava bike. Bi vê împaratoriya îslamî jî, li dijî rojavayê Ewropayê, Amerîkayê û Yekîtiya Sovyetê şer bike. Lewra rejîma Xumeynî ji derveyî xwe dijminê herkesekî û her dewletekê bû. Di navbeyna Îran û Îraqê de jî şer hebû. Komara Îslamî, li dinyaya demokratîk jî û li dinyaya sosyalîst jî xwediyê meşruiyetekê nebû. **Sedema duyem jî,** navneteweyîbûna serokbûna Dr. Qasimlo bû. Ji vê girîngtir jî, Dr. Qasimlo wek serok jî dostekî Ewropayê bû û serokekî ewropayî bû.

Hezar mixabin Dr. Qasimlo di vê pirsê de taybetiyeke serokatiyê nîşan neda. Ev jî bû sedem ku di nav pêvajoyê de gelê Kurdistanê û ew wenda bike, Komara Îslamî qezenc bike.

**Pêwendiya wî ya bi Îraqê re…**

Rastiyeke vekirî ya Kurdistanê heye ku dema ku li Kurdistanê şerê pêşmergatî bê meşandin, an jî ji bona şerê pêşmergatî hazirî bê kirin, bi dewletên cîran re danûstandin û eleqe, ji wan alîkarîgirtin pêwîst e. Ev dewletên ku tevgera Kurdistanê jê alîkarî bigrin jî, dewletên kolonyalîst yên ku Kurdistan dagirkirine.

Pêwendiyên PDK a Îranê û Dr. Qasimlo jî bi Îraqê re hebûn. Dr. Qasimlo di van pêwendiyên xwe de xwediyê prensîb bû. Bi ev pêwendiyên xwe tu dem zerar neda Tevgera Başurê Kurdistanê. Ji bona vê jî, jiyana xwe dirêj li Îraqê nedomand. Demên pêwîst li Îraqê dima û karên xwe dimeşand.

**Pêwendiya wî yên bi hêzên Kurdistanê û PKK'ê re…**

PDK a Îranê û Dr. Qasimlo di pêwendiyên xwe de xwediyê prensîb bû û bi her rêxistineke Kurdistanê re nedida û nedistan. Pêwendiyên wî zêdetir bi rêxistinên ku neradîkal re bû. Ji bona vê bi rêxistinên Bakûrê Kurdistanê (PSK xerîç) re pêwendiyên wî ne xurt bûn. Bi taybetî jî bi PKK'ê re hîç pêwendî pêk neanî. Ji wan re mecbûr bibû ku bibe alîkar. Ew piştî demeke kurt jî heq derket ku çima bi PKK'ê re danûstandin nake. Lewra PKK'ê pişt re bi hêzên Dewleta farisan re bû yek, êrîş bir ser PDK a Îranê. Di vê merheleyê de jî PKK'ê li Rojhilata Kurdistanê pirsgirêkeke gelek mezin e û PKK'ê rasterast midaxaleyî tevgera Rojhilata Kurdistanê dike.

**Qereqtera serokatiya wî û awayê siyaseta wî…**

Baş tê zanîn ku çend kategorî serok û serokatî hene. Dr. Qasimlo wek kategorî di nav kategoriya serokên demokrat û hevdem de bû. Lê aliyê wî yên kevneşopî jî hebûn. Dema ku dihat Kurdistanê çanda welatên seyemîn û Rojhilata Navîn li ser wî jî tesîr dikir.

Dr. Qasimlo, sosyalîst bû, lê ne Stalînîst bû. Di nav partiyê de pîvanên demokrasiyê bi giştî be jî pêk dianî. Ew dostê sosyal demokratên Ewropayê bû. Ji bona vê jî partiya wî di Enternasyonala Sosyalîst de çavdêr bû. Heger Dr. Qasimlo sax bûya, îro wek YNKê partiya wî jî dê di bibûya endamê Enternasyonala Sosyalîst.

Dr. Qasimlo ew taybetiya xwe ya demokrat û hevdem, bi projeya xwe ya navenda PDK a Îranê gelek vekirî diyar dikir. Navenda PDK a Îranê ji çekên mezin hatibûn azadkirin. Dema ku mêvan diçûn nevanda Dr. Qasimlo, diviya bû ku bê çek biçin nevandê.

Dr. Qasimlo ji bona Otonomiya Kurdistanê demokrasiyeke xurt pêwîst didît. Dr. Qasimlo digot ku **"me baweriyekî tewaw bi rolê bingehîn yê demokrasiyê heye. Bê hebuna demokrasiyekî cîhgir û qahîm di Îranê de Otonomiya Kurdistanê dê her gav di bin tirs û givaşa ji nav çûnê da be. Tenê rêya cihgirbûn û berdewambûna Otonomiya Kurdistanê hebûna demokrasiyeke jêhat di Îranê de ye."**

Dr. Qasimlo û partiya wî bi demokrasiyê bawer dikir. Dr. Qasimlo di derheqê vê pirsê de digot ku **"me, di Kurdistanê û di Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de baweriyekî kûr bi demokrasiyê heye û em her wisan li ser bawerê ne ku bê destvehatin û cihgirbûna azadiyên demokratîk, welatê me nikare wan pirs û kêşên aloz çareser û safî bike ku ji mêje li dest wan dinalîne."**

Dr. Qasimlo li dijî terorîzmê bû û ji bona vê jî demokrasî diparast. Ji bona vê bi PKKê re pêwendî çê nekir. Dr. Qasimlo digot ku **"bi baweriya min tevgerên xwedî hêz, yanî evên ku ji azadiyê dixebitin û ji aliyê xelkê ve piştevanî ji wan re tê kirin, nabe penahî bibine ber terorîzmê, ji ber ku wan çi hewceyek bi terorîzmê nîne. Terorîzm, azadî û jîna xelkê sivîl û bêguneh tevî tirsê berengar dike û tenahiyê têk dide. Terorîzm, siyaseta fermî ya Komara Îslamî ye û berpirsên wê di salên borî de ev çende bi eyanî ragihandin û heta çend caran bi dijî me bi kar anînê, lê em terorîzmê mehkûm û şermezar dikin."**

Wî çi digot ew dikir. Ev jî taybetiya serokên hevdem û demokrat in. Di siyaseta wî de durûtî tune bû. Li hemberî te çi digot, ew jî dikir. Ne wek kesên din li pişt deriyan Kurdistana serbixwe biparêze, li ber deriyan jî ji bona ku ji dewletan re şêrîn xuya bike, otonomiyê biparêze.

Dr. Qasimlo her demê dubare dikir ku **"mumkin e ku siyaset huner e. Lê xala jar û qels ya tevgera kurdî eva bûye ku hetanî nuha yan hemû tiştek xwestiye yan çi tiştek, lewra siyaset ne reş û sipî ye, belkî di navbera reş û sipî de rengê din jî hene."** Bi baweriya Dr. Qasimlo di navbeyna hevîyan û siyaseta realîst de ferqeke mezin heye. Lewra pêwendiya siyasetê bi rastî û heqîqetên hundirîn, herêmî û cîhanî ve heye.

Dr. Qasimlo di siyasetê de biryardana serbixwe gelek girîng didît. Wî bawer dikir ku **"divêt em di berahiyê de girîngiyê bi hêja bê dawî ya gelê Kurd bidin û bi xwe û bi xebata xwe pişrast û arxayîn bin û xwe wek binasekî serbixwe di orta siyasî ya welat de didin kifşê, hingî îdî piştevanên me dê zêde bin û zirûfa serkevtina me baştir pêk ware."**

**Şehîdketina Dr. Qasimlo…**

Kurdan di hemû dîrok û jiyana xwe de her demê xwestine ku bi neteweyên cîran re bi rengekî aşitî û biratî bi hev re bijîn. Ji bona vê jî, li Rojhilatê Kurdistanê û li başûrê Kurdistanê di demên bihurî de otonomî û di ev merheleya dawî de federalîzm parastine. Ev yeka ji bona Rojavayê Kurdistanê û Bakûrê Kurdistanê jî derbas dibe û bi wateyeke din rastiyek e. Hezar mixabin ew dewletên ku Kurdistan dagir kirine û Kurdistan kirine kolonî, tucaran nexwestine ku bi awayekî mentiqî li daxwazên neteweya kurd binêrin û ji bona çareserkirina pirsê hewildeneke aşitîxwaz pêk bînin.

Dewletên kolonyalîst her demê bersîva serok û berpirsiyarên kurdan bi şer û qatlîema dane.

Dr. Qasimlo jî yek ji wan serokên kurdan bû ku wî jî wek Qazî Mihemed dixwest ku bi riyeke aşitîxwaz bigihîje armanca xwe. Ji bona vê jî gellek hewil da. Dr. Qasimlo cara yekem li Qanûna Pêşî ya sala 1988'an de û cara duyemîn jî li Kanûna Paşî ya sala 1989'an de (li ser daxwaza Komara Îslamî) bi nûnerên Komara Îslamî re rûnişt û xwest ku mafên neteweya kurd bi riya aşîtiyê werbigre.

Komara Îslamî di van rûniştinan de jî, xwestine ku Dr. Qasimlo bikujin, lê bi serneketine.

Dr. Qasimlo cara seyemîn jî şaşî kir, di 13. 07. 1989'an de bi berpirsiyarên Komara Îslamî re rûnişt. Rûniştin li Ewusturyayê li bajarê Vîyanayê pêk hat. Ew, hevalên xwe Ebdullah Qadirîazer ku endamê Komîteya Navendî ya PDK a Îranê, mamosteyê zanîngehê Dr. Fazil Resûl, bi destê berpirsiyarên Komara Îslamî li ser maseyê bi awayekî qelejî hatin kuştin û şehîdkirin.

Gellek eşkere ye ku serokkomarê Komara Îslamî Mehmud Ehmedînejad di kuştina Dr. Qasimlo û hevalên wî de organîzekar e. Lê dîsa jî, di sedsala 21'an de dikare bibe serokkomar. Ev yeka jî diyar dike ku hiqûqa navneteweyî jî gelek qirêj bûye.

Gorî serokkomarê 1'emîn ya Komarê Îslamî Ebdulhesen Benî Sadr, Ehmedînecad di kuştina Dr. Qasimlo de ji komandoyan re çek peyda kirine.

Ji bona çareserkirina pirsa Kurdistanê bi desthilatdarên Komara Îslamî re danûstandin helwesteka gelek xwezayî bû. Lewra PDK a Îranê û serokê wê Dr. Qasimlo, hemû kurd û

# Bizava Siyasî A Kurd Ji Nêrîna Dîroka Siyasî Ve

Beşa 4

**Bêhzad Xoşhalî ***
**Wergeran ji Farsî/ Omîd Esxeran**

Bizava Şêx Mehmûd di dîroka siyasî a gelê Kurd de, mîna serhildana Şêx Ubeydula Nehrî û bizava Simko, xwediyê hin taybetmeniyên siyasî ye ku serbarê cudakirina xwe ji serhildanên din, mîratên pirbuha ji bo tevgera gelê Kurd bicî hiştiye.

Kiryar: Bizava Şêx Mehmûd Berzencî
Sebeb: Şêx Mehmûd Berzencî(Hefîd)
Biyav:
A) Dem: 1919 – 1934
B) Cih: Başûrê Kurdistanê(Herêma Niha a Kurdistanê li Îraq û herêma Silêmaniyê)
Armanc: Avakirina dewleta Kurdistanê

Kurtiyek ji jiyana siyasî a Şêx Mehmûd Berzencî:

Piştî şerê cîhanî ê yekemîn, Şêx Mehmûd weke yek ji kesayetiyên nava tevgera neteweyî a Kurd û di heman demê de jî sembola neteweyî a Kurdan li berxwedan li hember mezintirîn kolonyalîsta cîhanê bûye. Şêx Mehmûd ji wan rêberan e ku serbarê berbirûbûna rasterast tevî Birîtaniyayê, li dema binçavkirin û dûrxistina bi neçarî de jî, tu car ji armancên welatperwerî ên xwe dûr neket û hertim ji bo bicîgihandina armancên han yên xwe dihewilî. Di yek ji nameyên Reşîd Zekî, berpirsê nûneriya Kurdistana Başûr ji bo Konsola Birîtaniyayê li Beyrûtê, li bervara 6'ê Tîrmeha 1919'an de, girtîngtirîn daxwaz û xwestekên Kurdan bi awayê jêrîn hatine bicihkirin:

1- Serxwebûna giştî û bê şert û merc a hikûmeta Kurdistanê di bin desthilatdariya Şêx Mehmûd bi navendîtiya bajarê Silêmaniyê
2- Dabînkirina hêsankariyan ji bo lidarxistina pêwendiyên dîplomatîk di navbera hikûmeta Kurdistanê û dewleta Fransayê
3- Dawîanîn bi desthilatdariya Birîtaniyayê a li ser Kurdan bi piştevanî û hevkariya dewleta Fransayê
4- Dabînkirina hewcehiyên madî ji bo akinciyên Silêmaniyê ku bi sedema dorpêça arteşa Birîtaniyayê tevî pirsgirêkan berbirû bûne.
5- Hewl ji bo dabînkirina ewlehî û azadiyê li Kurdistanê
6- Haydarkirina heyeta Amerîkayî ji rewş û zirûfa niha a Kurdan
7- Daxwaza piştevaniya tev alî ji Fransayê

Di yek ji girove û belgeyên din de hatiye: Hikûmeta Kurdan li Silêmaniyê hatiye avakirin ku bi awayê jêrîn e:

Ji Mardîn heya Sine û ji wir ber bi bakûr heya Urmiyê û Başqala. Hêjayî gotinê ye ku akinciyên Kerkûkê, Şêx Mehmûd weke şahê xwe pejirandine.

Girîngtirîn taybetmendiyên bizava Şêx Mehmûd Berzencî:

1 - Rûçikê olî û neteweyî a tevgerê
2- Avakirina hikûmeta Kurdistanê li çend qonaxan
3- Berxwedana berfireh li hember Birîtaniyayê
4- Sernaserîbûn û beşdariya tev alî di bizavê de
5- Pêwendiya bihêz û çalak tevî rêberên tevgerê li Îran û Turkiyê(Simko û Celadet Bedirxan)
6- Nasîna Şêx weke hakimê Kurdistanê ji aliyê rêberên Kurd ve
7- Qelsî û lawazî di pêwendî û gotûbêjên siyasî tevî dewleta Birîtaniyayê û nûnerê Samiyê Birîtaniyayî li Bexdayê
8- Vegotina sirûda "Ey Reqîb" ji aliyê Dildar, helbestvanê Kurd li dema Şêx Mehmûd li dijî kolonyalîzma Birîtaniyayê ku piştre weke sirûda neteweyî a Kurdan hate nasîn
9- Hewla Şêx Mehmûd ji bo mikûm û berfirehkirina desthilatdariya xwe bi ser hemû Kurdistanê, bê liberçavgirtina sînorên coxrafiyayî yên diyarîkirî ji aliyê civaka navneteweyî ve
10- Cihgirtina bizava Şêx Mehmûd di demekê de ku giringtirîn taybetmendiya wê, ne ewlebûn û nebûna hevahengiya siyasî li herêmê ku ji ber hevrikiyên siyasî û leşkerî ji aliyê hêzên ewropayî di herêmê de pêk hatibû
11- Berbirûbûna leşkerî a rasterast tevî arteşa Birîtaniyayê li Kurdistanê û bombebaran Silêmaniyê di du qonaxan de

Nirxandin: Şêx Mehmûdê Berzencî bi avakirina hikûmeta Kurdistanê û pêşkêşkirina modelekê ji pêkhateya siyasî – îdarî li Silêmaniyê, merema rastîn a xwe ji bizavê bona avakirina desthilatdariya serbixwe a Kurdî li Rojhilata Navîn ji bo cihgirkirina herêmên Kurdakincî li çarçoveyek siyasî bi navê Îraqê ku qirar bû di pêşerojê de were avakirin, nîşan da. Şêx Mehmûd di heyama berxwedan û avakirina hikûmeta Kurdistanê de, tucar amadeyî şopandina siyaset û biryarên nûnerên Samîyê Birîtaniyayî li Bexdayê nebû û ji ber bêhêzbûna berçav di dîplomasiya siyasî de, bi bihêzkirina pirsa olî li hember nûnerên Birîtaniyayê û hewl di pêxema nîşandana hin dirûşmên olî de, bi kiryar nûnerên Birîtaniyayê ji bo desthilatdariya xwe li Îraqê bêhêvî kir û di encam de ew mecbûr bi anîne serkara Melik Feysel û pêkanîna çarçoveyek siyasî ku pêkhatibû ji Erebên Şiî, Erebên Sunî û Kurdan, kir.



* lêkolînvan û nivîskarekî ciwan yê Rojhilatê Kurdistanê

Mîcer Wîlson, nûnerê Samiyê Birîtaniyayê li Bexdayê, di rapora xwe a ji bo Wezareta Karê Derve a Birîtaniyayê de, qala jêhatîbûna Şêx Mehmûd ji bo hikûmeta pêşerojê ya Îraqê dike, lê di heman de jî dibêje: "Ji ber tagiriya xurt a olî û hin sedemên din, em nikarin baweriyê bi wî bînin (FO371/5124/Baghdad1921)".

Sê belge ji belgenameyên Wezareta Karê Derve a Fransayê, derheq Şêx Mehmûd û hikûmeta Kurdistanê

Li beşek ji belgeya yekem ku ji aliyê heyeta Kurdistanê ve bi nûneriya Seyîd Ehmed, li bervara 18'ê Tebaxa 1919'an, ji bo Kolenel Kiros, Efserê taybet yê pêwendiyên Fransayê li Şamê, hatiye şandin, hatiye: "Ez dubare dikim ku liv û tevgera Kurdan ji ber sedemên jêrîn pêk hatine:

A) Berfireh û xurtbûna givaş û stema neteweyî a li dijî Kurdan
B) Maytêkirinên berdewam a hêzên Birîtaniyayê û destpêka xebata çekdarî li dijî wî welatî
C) Ji destçûna taba giştî a xelkê û destpêkirina xebata çekdarî li dijî Birîtaniyayê

2- Di belgeya duyem de jî ku li bervara 10.03.1943'an, bi hejmara 55'an ji aliyê fermandehiya giştî a hêzên Fransayê li herêmê ji bo Wezareta Karê Derve a Farnsayê hatiye şandin, di dawiyê de îşare bi vê mijarê hatiye kirin ku "Şêx Mehmûd bi tevahî li hizra desthilatdariya serbixwe ji bo Kurdan e, eger çi ku di zirûfa niha de, gihîştin bi armancek wiha, ne nêzîk e".

3- Di belgeya sêyem de ku li bervara 10'ê Hezîrana 1923'an bi hejmar 22, di bin navê "Nerazîbûba Kurdistanê li dijî siyasetên Birîtaniyayê" ji bo Serok Wezîrê Îranê(rûnivîs ji bo nûnerên Amerîka, Îtaliya, Rûsiya û Fransayê) hatiye şandin, hatiye: Bi navê mirovahiyê em daxwazê ji hêzên bêalî dikin ku bi şandina heyetan û dîtina wêraniyên nava bajarê Silêmaniyê ku ji aliyê hêzên Birîtaniyayî ve hatine encamdan, dawiyê bi pirsgirêkên han bînin. Nameya han ji aliyê piraniya rêberên Kurd li Îranê jî hatiye wajokirin".

Doma R. 5'an

hêzên din yên Rojhilatê Kurdistanê xwediyê stratejî û projeya **"li Îranê demokrasî û li Kurdistanê Otonomî"** bûn. Lê hîç şik tune ye ku awayê rûniştin û peymançêkirinê ne maqûl û şeffaf(zelal) bû. Ne di bin kontrola hêzek û dewleteke seyemîn de bû.

Dr. Qasimlo bi desthilatdarên Komara Îslamî gelek bawerî kiribû. Ew jî qelsî û lawaziyeke gelek mezin bû û ev jî bû sedem ku Dr. Qasimlo gelek bi rehetî bê kuştin.

**DR. Qasimlo serokekî Kurdistanê yê navneteweyî bû. Di vê merheleya globalîzmê de û di dema Proja Rojhilata Navîn ya Mezin de neteweya kurd hewcedarî wî bû. Hezar mixabin neteweya kurd ew zû û bêwext wenda kir. Ev jî ji bo tevgera Kurdistanê û bi taybetî jî, ji bona Tevgera Rojhelatê Kurdistanê bû darbeyeke mezin.**

Têdîtin: Eva nêrînên azad ên nivîskar in, ne siyasetên Agirî ye.

## Ji Ber Binpêkirina Mafê Mirovan Rêxistina Efûya Navneteweyî Bi Xurtî Dewleta Îranê Rexne Kir

Saziya Efûya Navneteweyî di vê rapora xwe de, nigeraniya xwe derheq xurtbûna pêvajoya tepeserkirina Kurdên Îranê, bi taybetî çalakên mafê mirovan yên Kurd diyar kir. Li gor rapora "BBC"yê, Saziya Efûya Navneteweyî ragihand ku kêmneteweya Kurd li Îranê di warê mafên civakî, siyasî û çandî ve dikeve ber ferq û cudahiyan û deverên Kurdakincî di warê aborî de girîngî pê nahê dan û bi vê egerê hejmareke zaf ji Kurdan bêkar in. Li gor rapora han heta helbijartina hinek ji navên Kurdî ji bo zarokên Kurd tevî ferq û cudahiyên çend qat zêde berbirû ne, çimku di civaka Kurdan de deb û edetên civakî ên tund hene û ev ferq û cudahiya demekê xirabtir dibe ku dewlet tu hewlekê bona piştevanîkirin ji mafê jinan nade. Rêxistina Efûya Navneteweyî di vê raporê de her wiha dinivîsîne: "Çalakên parêzerê mafê mirovan, rojnamevan û çalakên siyasî û civakî tevî girtin û dadgehîkirinên neyasayî berbirû ne û hinek ji wan heta bi derbazkirina pêvajoya han, bi cezayê zîndanê û heta îdamê hatine mehkûmkirin.

Hêjayî gotinê ye ku Kurd nêzîk 12 milyon anku %15 ji nifûsa xelkê Îranê pêk tîne.

## Rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî Yê PDK Îranê Spasnameyek Ji Xelkê Kurdistanê Re Şand

**Di spasnameyekê de bi hinceta birêveçûna yekgirtiyane a girev û tevgera sivîl ya roja 22’ê Pûşperê, 19’hemîn salvegera terorkirina Dr. Qasmilo, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û Ebdula**



**Qadirîazer, rêzdar Mistefa Hicrî sipasnameyek ji xelkê Kurdistana Rojhilat re şand û ew roj weke rojeke dîrokî zanî. Deqa peyama Sekreterê Giştî yê PDK Îranê bi vî awayî ye:**

**Xelkê welatparêz û azadîxwaz yê Kurdistanê!**

**Silavên germ ên şoreş û berxwedanê!**

Di roja 22’ê Pûşperê(12.07.2008), 19’hemîn salvegera terorkirina Dr. Qasimloyê nemir, Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat û rêberê navdar û bilîmet yê gelê me, we carek din erê bi bangewaza PDK Îranê got, dikan û bazar daxistin, bi kincên Kurdî ve daketin ser rê û şeqaman û şevê çirayên malên xwe temirandin.

We hemû ev çalakiyane di rewşekê de meşandin ku memûrên mirovkuj û dijminên azadiyê bi armanca tirsandina we dora bazar, kûçe û malên we girtibûn, bi gefxwarin ji we, dixwestin viyan û îradeya xurt û qahîm û baweriya kûr ya we, bi biryarekê ku we dabû, lerzok bikin. Bêxeber û bêhay ji vê çendê ku mêjdem e xelkê têhniyê azadî û mafê neteweyî ê Kurdistanê, heybeta kirêgirtiyên Komara nezanî û paşverûyiyê şikandiye û biryara xebat û nerawestan heta serkevtinê dane û di vê rêyê de amade ne bedel û goriyan bidin.

Xwîşk û birayên hêja!

Remz û sembola serkevtina vê tevgerê di hevgirtin û yekîtiya we xelkê gund û bajaran de bû ku bi yekrêziya xwe nîşan dan ku Komara Îslamî serbarê manorên xwe ên leşkerî û anîna çekdarên teyar li hember yekîtiya we de, reben û zebûn e. Bo carek din jî we bi wê wêrekiyê bêzarî û kerb û nefreta xwe bi ser Komara mirovkuj a Îslamî barand û ruha paqij a Dr. Qasimlo û hemû şehîdan şad kir. Ji bilî vê yekê, dîsa we bi tev aliyekê ve selimand ku hûn rêvîngên bi emek û wefadar ya Qasimloyê nemir û partiya Qasimlo, PDK Îranê ne.

Em piştrast in, ew roje di dîroka xebata neteweya maflêxwarî ya Kurd de, tu demekê ji bîr naçe.

Bi vê sedemê, em spas û pêzanîna xwe pêşkêşî we hemû xebatkar û wan kesayetî û aliyan dikin ku bi awayekê di wê kampaynê de beşdar bûn, em rûmet û şanaziyê bi hişyarî û wêrekiya we dikin û we hêjayî hemû azadî û bexteweriyê dizanin.

Bila em 22’ê Pûşperê bikin serfesleke nû ji xebata sivîl li dijî rejîmê.

Serkevtin û serbilindî ji we re, serşorî û neman ji bo Komara Îslamî a Îranê

## Şiroveya Peyvên Siyasî

Berhevkar: Omîd Esxeran
omid_anbi@yahoo.com

# Îndîvîdualîzm

Têgiha han ji peyva “Individu” hatiye wergirtin û tê wateya takekesxwazî yan resenayetiyê. Alîgirên Îndîvîdualîzmê berjewendiyên takekes li jor hemû berjewendiyên civakê dihesibînin û li ser vê baweriyê ne ku takekes baştirîn biryarder e li ser jiyana xwe û çavdêriya bîsînor a hikûmetê nikare merem û armancên wî/ê bînin cî û maytêkirina dewletê, tenê demekê bi mifah û qazanc e ku vêc û qazanca tev endamên civakê ewle û dabîn bike.

Di rastî de, takekesxwazî sembola sîstema aborî a sermayedariyê ye û weke taybetmendiyek xweyî a borjuwaziyê tê zanîn. Çunku gerek li gor bingeh û pîvana han danûstandinên azad werin kirin û nabe tu sînorek ji bo takekesan werin danîn. Her ji ber vê çendê ye ku fîlesofên hevçerxên sermayedariyê, tenê qala taybetmendiyên takekes dikin û bi awayekî berfireh lêkolînê li ser takekes û merem û qazancên wî/ê dikin.

Berevajî vê çendê jî teoriya zanista Sosyalîzmê berjewendiyê civakê li serweyî hemû vêc û berjewendiyên takekes dihesibînin û tenê pûte û girîngiyê bi civakê dide ku tê de gişt endamên wê weke hev ber bi pêşkevtinê biçin. Îndîvîdualîst li ser vê baweriyê ne ku balnedan ji daxwaz û xwestekên takekes, şaşiyek mezin e û dibe sedema zulm û zoriyê. Berevajî wan jî, hizirvanên sosyalîst li ser vê baweriyê ne ku bê hebûna milkdariya giştî û nebûna civakek sosyalîst, zirûf û delîveyên baş ji bo perwerde û hînkirina civakê çê nabe û ew hizr û seha ku di sîstema takekesxwaziyê de bala xelkê bo aliyê xwe dikişîne, di sîstema komelgehxwaziyê de, nahê dîtin.

Fîlesofên Sofîst ên Yûnanê di sedsalên 4 û 5’an ên berî zayînê de, weke avakerên xwendingeha han tên hesibandin. Ew li ser vê baweriyê bûn ku takekes divêt di bin desthilat û hejmoniya civakê were azadkirin û serxwebûna takekes di pileya yekem de be.

Piraniya fîlesofên Rojavayî li ser vê baweriyê ne ku takekesxwaziya bêsînor ji bilî kêşe û pirsgirêkan tu encamek din nîne. Lewra ji ber vê çendê alîgiriyê ji takekesxwaziya sînordar û miyanerew dikin û her weke ku Soqerat jî dibêje resenayetiya takekes rewa û berheq e, lê bi mercekê ku ew jî stûxwarê yasa û pîvanên dewletê bin.

**Çavkanî:**
**(Ferhengî Ramiyarî Nîga) Azad Weledbegî**
**(Danêşnamêyê Siyasî) “Politicial Dictionary”**
**Daryûş Aşorî**

# Azadiya Lixwekirinê, Beşek Ji Maf Û Azadiya Jinan E

Nivîsîn: Hemîd Muxtarî



Heyamek e ku hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê pêvajoyek bi navê " Parastina Ewlehiya Civakî" dest pê kirine ku di bazar, şeqam, kûçe û taxan û heta xwaringehan de ji rêya pêkanîna tirs û girtin û gefxwarinê, xelkê neçar bi lixwekirina kinc û cil û bergan li gor Ola Îslamê dikin. Rejîma Îranê bi piştgirêdan bi madeya 638'an, a Yasaya Cezayên Îslamî derheq bê "hicab"iyê, dengê jinên nerazî û wekhevîxwaz tepeser dike.

Di vê madeyê de hatiye: " Her kes ku bi fermî di cihên giştî de kiryarek heram encam bide, xincî cezayê vê sûçê ku di yasayê de hatiye diyarîkirin, bi cezayê hepsê ji 10 rojan heya 2 mehan, yan 74 derbeyên qemçiyan tê mehkûmkirin û ger kiryarekê encam bide ku li gor yasaya bingehîn kiryara encamdayî ne sûç be, lê bibe sebebê birîndarbûna exlaqê giştî, tenê dê bi cezayê hepsê ji 10 rojan heya 2 mehan û 74 derbeyên qemçiyan bê mehkûmkirin.

Têdîtin: Ger jineke bê "hicab" di cihên giştî de hatin û çûnê bike, dê bi cezayê hepsê ji 10 rojan heya 2 mehan yan jî 50 heya 500 hezar tûmenan bê mehkêmkirin.

Rejîma Îranê her li destpêka gihîştina bi desthilatê, dijberiya xwe tevî wekheviya jin û mêran ragihand û desthilatdarên vê rejîmê bi pejirandina yasayên li dijî jinan, îdeolojiya xwe a paremayî xistin qonaxa piratîkê.

Li gor dîtina Xomeynî, avakerê rejîma Komara Îsalamî a Îranî ve, xebat bona bidestveanîna wekheviyê ji bo jin û mêran, dijberî tevî ola Îslamê dihat hesibandin, lewra navhatî her li destpêka bidestvegirtina desthilatê li Îranê dijberiya xwe tevî gişt ew mafên ku jinên azadîxwaz ji destpêka şoreşa "Meşrûte" ve heya wê demê bi dest xistibûn, weke hebûna mafê jihevveqetiyanê, mafê serperstîkirina zarokan piştî cudabûn ji hevjînê xwe, dadwerîkirin, beşdarîkirin di desthilata siyasî de û...îlan kir û ragihand: Erek û wezîfeya sereke a jinan karkirin di nava malê de û çêkirina zarokan e, lewra hemû jinên wê demê ku di şoreşa Îranê a di sala 1979'an de bona hilweşandina rejîma Paşayetiyê beşdarî kiribûn û pirniya wan jî bê"hicab" bûn û kincên Îslamî li xwe nekiribûn, ji aliyê Xomeyî ve weke neyarên vê şoreşê hatin naskirin!

Vira pirsiyarek tê holê: Gelo çima rejîma Îranê dijberiyê tevî mafê jinan dike?

Bersîv rohn e: Çimku pirsa jinan tevî man û desthilatdariya Melayan, têkiliyeke rasterast heye û bê hebûna ferq û cudahiyên cinsî, rejîma "Wilayeta Feqîh" bê wate ye.

Bo mînak axavtinên pêşnimêjê mizgefta Parêzgeha Meşedê di vê derbarê de ku dibêje: "Bê"hicab"iya jinan hember e tevî qetandina demarên ola Îslamê". Navatî her wiha didomîne û dibêje: "Jinên bê "hicab" peyadenizamên Amerîka û Îsraîlê li Îranê bona têkşikandina şoreşa Îslamî ne û jinên han divêt bi tundî werin tepeserkirin, çimku xavika Hezreta Fatime, çarenivîsa Îslamê parastî ye û neyarên me girîngiyeke zaf didin vê pirsê".



Herwiha Ehmedriza Radan, Serokê Polîsê Tehranê, pirsa bê"hicab"iya jinan weke yek ji nigeraniyên malbatan dizane û dibêje: "Bê"hicab"iya jinan dibe sedema jêrdehatina ewlehiya exlaqî û civakî û seba vê çendê ku ewlehiya sincî ji bo xelkê gellek girêng e, divêt pêşî ji vê yekê were girtin".

Li gor nêrîna han diviya niha di welatên demokratîk weke Siwîs, Kanada, Fransa û gişt welatên ku lixwekirina bi zorî tê de tune ye, ewlehiya xelkê di metirsiyê de ba, lê pêka serhejmariyên berdest welatên han di warê ewlehiya civakî ve di pileya yekem de ne.

Azadiya lixwekirinê, beşek ji azadiya jinan e, divêt jin di liberkirina her cure cil û bergekê de azad bin. Dewlet mafê vê yekê tune ku çi di bin navê ol de be yan li jêr her navekê din de be maf û azadiyên jinan di lixwekirinê de ji wan bistîne. Di rastî de rejîma Îranê di bin nave "Parastina Ewlehiya Civakî" de dest daye tepeserkirina xelkê. Ger mirov bi başî li ser vê gelaleyê birame, têdigihîje ku " Pirosesa Ewlehiya Civakî" di esla xwe de bêhurmetî bi jin û mêran e. Yanî jin alavek cinsî ne û mêr jî bi dîtina wan nikarin xwe kontrol bikin û dê êrîşa seksî bikin ser wan ku ev yeka jî ewlehiya civakî dixe metrisiyê!! Lewra dewlet bi pêwîst dizane ku pêşiyê ji vê yekê bigire. Lê di rastî de sekinîna rejîmê li hember xelkê ne seba parastina Ola Îslamê ye. Dewlet lewra sekiniye çimkû tenê tiştek ku pasawê mana rejîma Îslamî dike, pisra lixwekirin li gor qanûnên Olî ye û di bingeh de şer ne li ser oldarî û bê oldariyê ye, şer li ser demokrasî û dîktatoriyê ye. Çimki wekhevî bingeha demokrasî û mafê mirovan e, rejîma Îranê jî li dijî wekhevî û mafê mirovan e.

Bona çareserkirina pirsa jinan divêt wekheviya jin û mêran di hemû waran de bê pejirandin, ew jî tenê sîstemek demokrat e ku dikare vê pirsê û gellek pirsên din garantî û çareser bike. Ji ber ku demokrasî bi edelatirîn sîstema cîhanê ye.

# DUZIMANÎ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Wekî ku têzanîn zaroka/ê ku diwelide, pêşî fêrî zimanê dayika xwe, ango zimanê xwe yê zikmakî dibe. Bi vegotineke din, fêrbûna zimanê zikmakî di malzaroka dayikê de dest pê dike û heta dawiya temenê mirov didome. Carekê divê ev rastîniya zanistî, tu car wekî angaşteke pûç an jî mijara nîqaşeke qîç neyê dîtin. Hemû encam û peyitandinên zanistî, bi saya ceribandin û dahûrandinên dorfireh bi dest dikevin. Lewma jî, kîjan pisporên ku têkildarê pisîkolojiya civakê dibe û devê xwe vedike, pêşî balê dikişîne ser girîngiya zimanê zikmakî û wî wekî riknê pêwendiya civakê û hîmê kesayetiya însên dibîne. Bi rastî, dubarekirin û kirpandina vê rastîniyê jî gelekî di cih de ye. Û heta mirov dikare bibêje kêm e û ne zêde ye.

Hemin ku zimanê dayikê wekî zimanê bingehîn tê qebûlkirin û her wiha, her mirovek bivênevê nasdarî wî zimanê xwe yê bingehîn dibe, gelo çima fêrbûn û perwerdehiya vî zimanî hatiye/tê qedexekirin û astengkirin? Divê baş bê zanîn ku daxwaza perwerdehiya zimanê zikmakî, digel ku ji hemû liv û tevgerên bîrdozî û ramyarî bêrî ye û diviyatiyeke xwezayî û çarenîn e jî, bi hinceta armancên siyasî tê astengkirin û qedexekirin. Ango daxwaz û hewldanên ji bo zimanê maderî qet ne siyasî ye. Belê qedexekirin, astengkirin û manîkirina zimanekî rasterê siyasî û bîrdozî ye. Çawa ku hewcedariya xwarinê an jî pêdiviya vexwarinê ne helwesteke siyasî ye, divê daxwaz û hewldanên ji bo perwerdehiya zimanê zikmakî jî qet nebe mijara guftûgoyên siyasî.

Ma ku pirsgirêkên wisa tunebûna, dê çi xisara zimanê duyemîn û sêyemîn û hwd. hebûna? Ma ku zimanek li ser zimanekî din nehatiba ferzkirin û zimanek bi zimanekî din nehatiba lewitandin, dê çi pirsgirêk ji fêrbûna zimanê duyem û sêyem sadil bibûna? Gava di heman civakê de zimanek tê serbestkirin û yê din jî tê qedexekirin, xisar li herdu zimanan jî dibe. Lewre yên ku bi wî zimanî nizanibe û zorgayî axaftina wî zimanî dibe, ji ber ku nizane bi wî zimanî biaxive, tenê wî xera dike û wî ji xwezayî û reseniya wî bidûr dixe. Bo nimûne, em dibînin ku li Tirkiyeyê mirovên kurd, laz, çerkez, ereb, asûrî û hwd. ên ku bi tirkî nizanin û ji neçarî bi tirkî diaxivin, çi anîne serê tirkî. Ne zimanê xwe fêr dibin û ne jî fêdeya wan li tirkî dibe… Mînaka zindî îro bajarê Amedê ye. Li bajarê Amedê zarokên ku bi eslê xwe kurd in (û gelek ciwan û navser jî) tu carî peyvên tirkî rast bi kar naynin. Ji ber ku heman zarok baş bi kurdî nizanin, peyvên kurdî jî rast bi lêv nakin. Çewtî û şaşiyên kurdiya xwe tevlî zimanê tirkî û yên tirkiya xwe jî tevlî zimanê kurdî dikin. Yanê hin caran hevokên tirkî bi mantiqa kurdî û hin caran jî hevokên kurdî bi mantiqa tirkî werdigerînin. Bi kinayî ne kurdiya wan kurdiyeke têkûz û çêjdar e û ne jî tirkiya wan tirkiyeke durist û watedar e. Herdu jî bêteşe, bêtehm û nîvco dimînin. Sedema vê yekê jî kêmasî û nezaniya zimanê zikmakî ye. Heke hûn dixwazin Tirkî, Erebî û Farisî xurtir û têkûztir bikin, divê pêşî hûn Kurdî (û zimanên din) serbest bikin.

Pirsgirêka sereke, ne fêrbûn û ne nefêrnebûna zimanê dayikê ye. Nediyarbûn û nezelalbûna zimanê zarokî/ê yê zikmakî ye. Dibe ku dayîk bi eslê xwe kurd be û bi der û xwe wekî kurd nîşan bide. Belê di ducaniya xwe de pêwendiyên wê yên civakî bi kîjan zimanî ye? An jî di maweya bilivketinê de hikum û bandora kîjan zimanî bêtir li ser pitikê çê dibe ku digel wî zimanî dikeve dawa diya xwe? Carekê, zimanê zarokî/ê yê zikmakî(dayikê) çiqasî qels û lewaz dibe bila bibe, divê pêşî bêqisûr wî zimanî hîn bibe. Heke na, zimanê duyem û sêyem tu carî baş fêr nabe. Çawa ku bilindkirina avahiya ku hîmê wê ne saxlem be, xetere û bêfêde ye. Duzimanî û pirezimaniya mirovên ku zimanê xwe yê zikmakî baş fêr nebûbe jî ew qasî bêwate û bêfêde ye.

Çawa ku zexm û tebûtbûna avahiyekê girêdayî riknê (asasê) avahiyê ye, zexm û xurtbûna zimanê duyem ê ku mirov fêr dibe jî, girêdayî çawaniya zimanê wî/wê yê zikmakî ye. Kî, li ku çawa û bi çi awayî perwerde dibe bila bibe, heke mirov zimanê xwe yê sereke(yekemîn), ango zimanê zikamkî baş fêr nebûbe, tu carî nikare zimanê duyem û sêyem baş fêr bibe. Heke fêr bibe jî teqez dê qels, lewaz şaş û nîvco be.

Dîsa wekî ku li jorê jî hate diyarkirin, heke zimanê zikmakî baş hatibe rûnandin û rikn û ripinê zimanê dayikê di hiş û hişmendiya mirov de kok veda be, tu xisar ji fêrbûn û perwerdehiya zimanên din ên biyanî (duzimanî, sê zimanî û pirezimaniyê) nayê. Heta gelek fêdeyên wê hene. Belê pêşî divê zimanê dayikê jî bi hemû rêz û rêzik û qaydeyên xwe were fêrkirin ku mirov bikaribe bi hêsanî zimanê xwe ji bo zimanê duyem(biyanî) bike referans.

Kaniya Helbestan

## Difikirim



Bavê Welat bavewelat@yahoo.de

Difikirim xemgînim ez dinalim
dûrî teme ne dil şame
bê halim,
çû bahara temenê min
ez kalim,
Delala min ka çibikim nizanim.
Dûrî Welat
zehmet kêşim bi keder,
ji bo zor zehmetiyê
ji bo şer,
bûm koçberê Gerdûnê
ez li herder.
Delala min ka çibikim nizanim.
Tucar birnabe Welatê min şêrîn,
Bihuşta dinyayê
kaniya zêrîn,
dagirkirin wan neyarên
dev bi xwîn.
Delalamin ez çibikim nizanim.
Hetta azad nebim naqed
êş û jan,
ne çareye girî û şîn û fîqan
ez dixwazim hemêz bikim
Kurdistan.
Delalamin ez çibikim nizanim...

## Sergerdan

**Keser**

Gemî me ger di nav pêlan gemîvanek mi nîn e,

Bilû bahoz û teyrokê dezingvanek mi nîn e,
Kesrdarê firînê me per û balek mi nîn e
Bihajo hey serê gerdan ku rêzanek mi nîn e,
Wekî çîrokeke mat im wegêranek mi nîn e,
Neyar şêlam di bin pêyan berevanek mi nîn e,

Şikandim bi gef û fêlan çu samanek mi nîn e,
Kirim lal û girêdan dev çu ezmanek mi nîn e,
Li ser min gure gura ewran çu baranek mi nîn e,
Zuha bun gişt gulê mêrgan ku avdanek mi nîn e,
Belengaz im li gerdûnê ku lêzanek mi nîn e,

# KAYA KEVN

**Arjen Arî 15.07.2008-Amed**

Pêşiyên min ên ku ev 50 sal e min çand û zimanê wan ji xwe re kiriye mebesta jînê, rabûbin û gotibin 'kaya kevn nedêre' ez ê vê nivîsê bikim melhêb û 'kaya' ku Ozdemîr İnce ji zû ve bi sura bayê xwe dêrandiye, dîsa û ji nû ve ez ê bidim werana bê!

Zanim, bayê ku kurdî kurdî biwere, ji vê 'kaya' li ser bêndêra Ozdemir İnce dê qilçixine jê bivirvirîne û bi ser çavên hinekan de bibe!

Bila…

Pêşiyan gotine, 'serê ku neêşe ne tu serî ye'!

Ozdemîr İnce di qurçika xwe ya di Rojnameya Huriyetê de wisa nivîsiye:

'Pirsgirêkên girîng yên şair û nivîskarên esil-kurd ku Hemwelatiyê Tirkiyeyê ne, û xwe bi tirkî îfade dikin hene. Ev pirsgirêk di demên pêş de dê kêm nebin; ji kêmbûnê wirvetir dê zêde bibin.

Çi rê û bijartineke din ji bilî ku bi tirkî binivîsin nebû ya şairê mezin ê kok-kurd Ahmed Arîf û nivîskarê nîv-kurd Yaşar Kemal! Lê belê ji herduyan jî, bi taybetî ji Ahmed Arif, ne min xwendiye, ne jî min bihîstiye ku rojekê gotiye ' Xwezî min bi kurdî binivîsanda'.

Berî ku derbasî nivîsa xwe bibim, ez ê du pirsa bikim: Osmanî çawakî nebû asteng li pêşberî Yûnanî, Sirbî, Bulgarî, Romenî, Suryanî, û Erebî; û hişt ku ev ziman tev bi nivîsê û rêya edebiyatê bi pêş bikevin; lê bi tenê bû asteng li pêşberî pêşketina Kurdî?

Eger berpirsiyariyeke Osmanî nîn be di vî warî de; tawan, guneh tev yê Komara Tirkiyeyê ye?

Ji rewşa îroyîn ya Kurd û Kurdî qet tiştek nakeve pahra Kurdan?

Pirsgirêka şairên ciwan yên ku mecbûr dimînin bi tirkî binivîsin heye; 'pirsgirêka xwe li cihekî'* xwebicihkirinê! Ji ber ku qedexeya li ser weşana bi kurdî rabû, azadiya xweferkirinê ku fêkiyê xwe bide, pirsgirêk dê zêdetir bibe: Di warê nivîs û zimanê nivîsê de dê mecbûrî hilbijêriyekê bibin: Bi Tirkî, bi Kurdî? Heta niha, hima hima kêşeyeka wan a wisa nîn bû!

Dosyayek heye di kovara dumehî, hejmara 6ê ya bi navê Yasakmeyve de: Şêirên Ku Ji Rojhilat Hiltên'. Şairê bi navê Sezaî Sarioglu, Mehmet Butakin û Metîn Kaygalak bi mafdarî, dixwazin xwe vepesinînin û ji bo pêşeroja xwe jî bernameyekê amade bikin!

**WATEYA RENGDÊRA/HEWALNAv TİRK**

Ew şairên kok-kurd ku Hemwelatiyên Tirkiyeyê ne û di heman demê de zimanê tirkî bi kar tînin, naxwazin weke 'Şairê Tirk' bêne binavkirin! Ji bo ku xwe ji kesên ku xwe weke Şairê Tirk bi nav dikin, cuda bikin û xwe veqetînin serî li her rêyê didin. Dixuye ku sifata 'Tirk' li telê van mirovan dikeve! Hal ew hal e; bi vê pevgirêdanê, tu têkiliya sifata Tirk bi etnîsîteyê ve, bi nîjad ve, bi serûguh ve nîn e. Li vir, 'Tirk' di pevgirêdana zimanî de derdikeve pêş, û zimanê nivîsînê yanî Tirkî destnîşan dike!




Ev şairên kok-kurd ji bo ku nebêjin 'Şi'ira Tirk'; vêya diecibînin: Şi'ira bi Tirkî!

Ji bo ku bizanin ev rê rast e an şaş e, bila vê rêbaza min bi kar bînin: Bila Şêira Tirkî vegerînin Îngilîzî û Fransî. Binêrin bê dibe çi: 'Poetry in Turkish' û 'Poêsîse en Turc' ya jî 'Poema en turc'…Wateya van ev e:Şêira ku hatiye weguhaztinî Tirkî, yanî şi'îra ku tercûme bûye! Vêca ev bi tirkî dinivîsin!

Ji vê, tê vê wateyê ku şairên kok-kurd yên ku bi Tirkî dinivîsin xwe nikarin bi benê 'Şêira bi Tirkî' bigirin! Biyanî, mînak Îngilîz û Fransiz şair ji kîjan nîjadî dibe bila bibe, şêira ku bi tirkî hatibe nivîsandin, dê bi vê pênaseyê binav bikin û binasin: 'Turkish Poetry', û 'Poêsie turque' yanî Şêira Tirk!'

Şêira Tirk, Şêira bi Tirkî, Şêira Tirkî…

Pirs u pirsgirêka 'kî nivîskarê kurd e' di serê kurdan de zelal nebûbe heta niha, sedemek jî ev e: Melayê ku ev sed sal e mela ye, hima ku şaşikê datîne dibêje, 'na bavo, ez keşe me; kê gotiye ez mela me'!

De bila mizgefta me ji me re, kenise jî ji wan re be!

Ku tu wisa dibêjî, te dinêrî ku xwe enirandin, mahdê xwe tirşo mirşo kirin û gotin, ' ma ne, em ji bo kurdan bang didin!'

Li vê ecebê!

Kesekî dîtiye ku nêrî hatiye dotin?

Hebe nebe nêrî, berî ku bibe nêrî tê xesandin!

Yên mîna min sal û demsal xwarî, dê bibîr bînin, dema ku em zarok bûn, mezinên mîna ku tinazê xwe bi me bikin, ji me dipirsîn:

--Ka bêje…bi Tirkî min gur dî çi ye?

Pêşiyên jîr û zana zanibûn ku rojekê em ê bi tirkî gur bibînin, ku radibûn digotin, 'de bêje bavkê min, bi tirkî min gurdî, çiye?

Hûn ji min bipirsin bi tirkî min gurdî; Ahmed Arif e, Cemal Sureya ye, Cahît Sitki ye…

Bi we?!

*Ji bo ku têgih di cihê xwe de û bi wate be min lê zêde kir.

Têbinîyek: O.İnce, di gotara xwe de dibêje, 'Tirkî ne zimanê efendî ye. Û bi ser ve zêde dike, 'Ev pênase, hem zimanî-wêjeyî, hem jî ji hêla polîtîk ve şaş e'.

Gelo?!

# Bi Kurt Û Kurmancî Kî Ye Rewşenbîr Û Kî Ye Rewşenbîr ê/a Kurd?



**Konê Reş, Qamişlo 13/07/2008**

Rewşenbîr; ilm, zanîn û serwextiya giştî ye. Mirovên rewşenbîr jî, ew mirov in ku di nav me de dijîn û serwextî piraniya cureyên ilm û zanînê ne û her dem û gav bi dûv zanîn û nûbûnê de dibezin da ku civata me bi rengekî şaristanî û demokratî bi pêş keve û civata me di xweşî û şadiyê de derbas bibe. Erê mirovên rewşenbîr xwedî zanîneke giştî û têvele, wek: tore, bi tev cureyên xwe ve, dîrok, bi şaristaniyên mirovaniyên xwe ve, erdnîgarî, bi çiya û deştên xwe ve, civat û polîtîkî, bi fen û xapên xwe ve. Ango mirovên rewşenbîr ji her cureyên ilm, zanîn û toreyê dizanin û çiqas di zanîn û serwextiya xwe de kwîr û milevan bin, wiha ew ji rewşenbîrên rast û durist têne dîtin. Di vî warî de em nikarin kesên wek: Bijîjkan(Doktoran), bervedêran(Avokatan)û endezyaran ji rewşenbîran bibînin, eger ew di rewşenbîriya giştî de, bi rengekî têvel ne milevan û serwext bin.

Li gor baweriya min, rewşenbîrê/a ku rast û durist xwe rewşenbîr bibîne, pêdivî ye ku zanîna xwe bi rengekî hunerî, li gor ku di wê zanînê de pispor e, di ber gelê xwe de xerc bike, çi di warê civatî, toreyî, siyasî an aborî de be û bi mêranî û cegerdarî bervedêriyê di ber civata xwe de bike. Ronahiyê berde ser quncikên reş û tarî di civata xwe de û gazî bike û bibêje: Ev rewş xerab û şaş e, ya rast û durist evaye. Da ku civata ku ew têde dijî, bi pêşde here, di azadî û şadiyê de bijî. Ango rewşenbîr wek pêxemberan e, li xweşî, geşî û pêşketina miletan digerin, bê ku cudabûnê di nav nijad û nijadekî jin de bibînin, an miletekî di ser miletekî re bigirin, tev nijad û milet li bal wan wek hev in.

Rewşenbîrên rast rewşenbîr bin, ewên ku her dem û gav bi dûv rastî û heqiyê de dibezin, gelek caran ji ber vî karê wan, sergêjek li wan geriyaye, di ber bîr û baweriyên xwe de hatine girtin, sirgûnkirin û kuştin wek; Îsmaîl Beşîkçî di roja îro de û Helacê Bexdadî di heymê derbasbûyî de. Di her heyamî de rewşenbîrên wî heyamî hene û ta ku çerxa felekê li dar be û mirovanî li ser riwê zemîn hebe dê rewşenbîrên rast û durist jî hebin.

Belê rewşenbîrên kurd kî ne? Rewşenbîrên kurd digel şert û mercên li jor me gotin; Ewên ku tûrikê wan yê ilm û zanînê ji du çandan hatibe dagirtin, yek jê, çanda fermî ye, ewa ku di dibistan û zankoyên biyaniyan de fêr bûne wek: Erebî, Farisî û Tirkî. Ya din çanda kurdî ye, ewa ku ji biçûkanî ve di civata kurdî de fêr bûne û bûye perçak ji giyanê wan. Ango rewşenbîrên kurd ev in yên ku ji du çandan bi hev re tûrikê xwe dagirtibin û sûdeya ku ji herdu çandan dîtbin û tevî bixin xizmeta ferhenga kurdî de…

Di baweriya min de, ev yek tiştekî gelekî erênî ye ji rewşenbîrên kurd re. Vêca gereke rewşenbîrên kurd, wê çanda biyaniyan a ku fêr bûne, bixine bin xizmeta ziman û çanda kurdî de. Ne ku çand û zargotina kurdî a ku ji bav û kalên xwe fêr bûne, bixine bin xizmeta ferhenga biyaniyan de.

Mirovê/a rewşenbîr roleke mezin di pêşketina civatê de dilîze, ji xwe rewşenbîr ew e yê/a ku civatê ber bi pêşve dibe, rewşenbîr ew e yê/a ku li hemberî desthilatê disekine. Rewşenbîr û desthilat du hîmenên dijî hev in, rewşenbîr sipî ye, desthilat reş e. Ta ku dinya hebe dê reş û sipî raserî hev bin, dê di nav wan de şer be û wiha ta dawiya dinyê. Bi gotineke din, rastiya ku rewşenbîr lê digere tenê dêmekî wê heye, ew dêm sipî ye. Yê/a rewşenbîr her dem û gav li dêmê spî digere û dêmê reş û tarî dihetikîne, ji cemawer re beyan dike, da ku ew civata ku ew rewşenbîr têde dijî, ber bi xweşî, geşî û azadiyê ve here.

Bêguman rewşenbîrî berî her tiştî hilberîn û afirandin e. Belê yê/a ku ne şareza, zîrek û serwext be, nikare berhevkarî û wergêriyê jî bike. Ne her tişt têne berhevkirin û wergerandin, pêwîst e ew tiştên ku berjewendiyên gel di wan de hebin, di xizmeta xweşiya gel de bin, bêne wergerandin û berhevkirin. Pêwîst e ew berhevkarî û wergêrî di xizmeta gel de be. Berhevkarî û wergêrî jî berpirsiyarî ye.

Belê, Ji şert û mercên rewşenbîrên kurd ku bi kurdî bixwîne û binivîsîne, sûdeya ku ji tore, çand û folklorê biyabiyan dîtibe - ango dewletên dagirker-, bixwe bin xizmeta ziman û toreya kurdî de…Rewşenbîrê/a kurd ew e ku bi zimanê dê û bavê xwe girêdayî be, di mala xwe de bi kurdî xeber bide, serwextî zargotina gelê xwe be. Ku jê bê xwestin straneke kurdî an çîrokeke kurdî bibêje! Gereke zanibe, ji ber be û bibêje, bi kêmayî yekê zanibe. Hem jî, bi kêmayî gereke 25 pend û gotinên pêşiyan zanibe. Pêdivî ye ku rewşenbîrê/a kurd çend malik ji pêşgotina Mem û Zîn a Şêx Ehmedê Xanî ezber kiribe, hem jî, sirûda netewî kurdî a Ey Reqîb ji ber kiribe. Di gel ku serwextî dîrok, serhildan û erdnîgariya Kurdistanê be.

Şertê ku guftugo li ser nabe eve ye Ku rewşenbîrê/a kurd bi kurdî bixwîne û binivîsîne, zimanê kurdî zimanê axaftina mala wî/wê be. Hem jî divê ku serwextî tevgera rizgariya kurdî be, bi tev baskên wê ve, û eger şaşiyan di baskekî tevgerê de an di civatê de bibîne, gereke bê tirs û bi cegerdarî wan şaşiyan li ber çavê welatiyan raxîne. Dawî ez dibêjim ku rewşenbîr pale ye di civata xwe de, palevaniya şaşî û nexweşiyên civata xwe dike, da ku civata wî, di xêr, xweşî û pêşketinê de bijî. Erê di baweriya min de, mirovên wiha rewşenbîrên kurd in.

**Dengê Rojava**

## Ehemd Huseynî: Selîm Berekat ê bi kurdî-1

**Besam Mistefa**



Ev zarokê kurd ê şermîn û fediyokî ku ji destpêka salên 70-yan ji sedsala bîstan cîhana erebî ya wêjeyî hejand, û zimanê erebî geş kir, ne biyan bû ku li pey wî yekî weke wî di ezmanê wêjeya kurdî de, bi taybetî helbesta kurdî de jî, wekî stêrkekê biçirisîne. Ev stêrka bi şewq, kurê Amûda şewitî, hevalê Selîm Berekat ê here nêzîk, Ehmed Huseynî ye.

Ehmed Huseynî zimanê kurdî bi helbesta xwe re ji tewrikî xiste tewrikî dîtir de. Helbesta kurdî pê re derbasî pêvajoyeka xwe ya nuh ya sêyemîn bû, eva ku Qedrî Can di dema xwe de dest pê kiribû, lê ne bi rengekî rêk û pêk. Hilbet, qonaxa pêşîn bi Melayê Cizîrî û Feqiyê Teyran re û dûvre Ehmedê Xanî û…hwd dest pê kiribû, û ya dumeyîn seydayê Cegerxwîn (1904-1984) damezirandibû û ya sêyem Qedrî Can wek sembolekê jê re tête destnîşankirin lê bi rengekî piratîkî, ew bi Ehmed Huseynî (tevlî hin şairên din jî: Rojen Barnas, Hoşeng Broka, Hekîm Sefkan…hwd), ava dibe. (Hilbet, daxuyaniya Riwange ya Şêrko Bêkes û hevalên wî di salên 60-î ji sedsala bîstan de, destpêkek fermî bû ji helbesta kurdî ya nûjen re, lê bi zarê Soranî).

Bê guman, helbesta xweş xweş e, çi kilasîk be, çi nûjen be yan çi dibe bila bibe, lê hertim ked a şexsî û westana bêdawî ya helbestvanî, wekî rokê diyar e. Di helbestê de, ji ber ku girêdayî hest û nestên mirovî ye, qonax û dibistanên wêjeyî di baweriya min de, ewqas giring nîn in. Weke mînak, di hemû qonaxên helbesta kurdî de yên ku me li jor behsa wan kir, helbestvanên bi astên cuda-cuda hebûne. Vêce, em dibînin ku pêvajoya helbestî a pêşîn, helbestvanekî wekî Melayê Cizîrî peyda kir û yekî weke Melayê Finik yê ku helbestên Melayê Cizîrî didizîn û serê xwe bi wan re dihejand li ber xelkê wek ku yên wî bin! Her weha, pêvajoya dudiwan jî yekî weke Cegerxwîn anî holê û gellek navên ku mirov naxwaze wan bi lêv bike, derxistin û qonaxa sêyemîn jî, qonaxa nûjeniyê- yekî weke Ehmed Huseynî( Selîm Berekat ê bi kurdî) çê kir û gellek



helbestvanokên dîtir jî bi xwe re anîne meydanê.

Ehmedê Huseynî yê ku " pênûsê bi xewna" me " dilorîne" bi wê pênûsê medreseyeka helbestî ya nû di helbesta kurdî de vekir, wek S.Berekat di erebî de. Bê guman, gellek gotar ji vê mijarê re divên û di pêşerojê de dê hebin. Bi kurtî, ez dikarim bibêjim ku ev zemîna ku du mirovên wisa afirandin, ne zemînek hişk û pûç e, lê zindî û kesk e.

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

# Kela Bêrdûkê Kete Bin Çavdêriya UNESCO'yê

**Kavûs Ezîzî-** Li seranserê Kurdistanê cihawarên cur bi cur ên girîng û dîrokî hene ku têra xwe balkêş in, lê ji ber rewşa bindestiya Kurdan, bi başî nehatine parastin û dijminên Kurdan jî zêdetir ew xirab û tune kirine û ne parastine. Yek ji wan şûnwarên dîrokî li Rojhilatê Kurdistanê, **Kela Bêrdûkê** li Rojavayê navçeya Som a ser bi bajarê Urmiyê ye ku pêşiyên me jê re **Kela Banegê** jî gotine. Temenê vê Kelê 200 sal tê texmînkirin û yê ketiye ser rêya gundên Siltanî û Heseniyê û herwiha Rojhilatê Geliyê Masîro li Bakûrê Kurdistanê.

Ev Qele li sîngê razekevireke dijwar hatiye çêkirin û ji ber vê yekê heta niha jî weke xwe maye.

Di navbera salên 1982 – 1985'an de, Kela Bêrdûkê binke û baregeheke sereke a hêza Pêşmergeyên Kurdistanê bû, lê di sala 1985'an de, rejîma Komara Îslamî piraniya cihwarên dîrokî ên qela han herifandin û wêran kirin.



Dîmenek ji Kela Bêrdûkê

Heyamekê berî niha şandeke UNESCO'yê serdana kelê kirine û niha hejmar jê re hatiye danîn û yê ketiye bin zêrevanî û çavdêriya wê rêxistina navneteweyî. Li gor gotina xelkê herêmê, NUESCO dixwaze hinek beşên wê nûjen bike û ji wêrankirinê bi dûr bixe.

Hewce ye ku gelê Kurd bala xwe bide wan cure cihwarên dîrokî û bona parastina wan helwê bide, ji ber ku ew beşek ji nasnameya me ya neteweyî ne.

## Jinek Bû Komîsaryaya Bilind Ya Mafê Mirovan A Rêxistina Neteweyên Yekbûyî

Ban Kî Mon, Sekreterê Giştî yê RNY, "Navanatmnavy Pillay", jina hiqûqzan a xelkê Afrîqaya Başûr dê weke Komîsara nû a Komîsaryaya Bilind a Mafên Mirovan binasîne.



"Navy Pillay" sala 1941'an li Afrîqaya Başûr ji dayîk bûye. Ew yekemîn jina çermrengîn bû ku weke Dadwer gihîşte berpirsiyariya bilind a Dadê di welatê xwe de.

Ji sala 2003'an ve weke Dadwera Dadgeha Navneteweyî li Laheyê dixebitî û di çend rêxistinên mafên Jinan li Afrîqaya Başûr têkoşîna wekhevxwaziya di navbera jin û mêran de meşandiye.

Hêjayî gotinê ye ku ev berpirsiyariye berê li stûyê jineke Kanadayî bi navê "Luyis Arbor" bû ku di cihê wê de, ji bo dema 5 salan "Navanatmnavy Pillay" dê bixebite.

## Şekir, Jehra Şirîn

Bikaranîna zêde a şekirê di salên borî de û herwiha zanyariyên li dor ziyanên mifahstandin ji wê, bû sedem ku zana û pispor lêkolînên nû di vê derbarê de dest pê bikin.



Lêkolînvan û zana li ser vê baweriyê ne ku şekir jehra sipî ye û bikaranîna wê, silametî û tenduristiya laşê mirov dixe xeterê. Bi taybet dikare bibe sedema jarbûna çavan û rizîna didanan.

Pisporên warê tendurustiyê dibêjin, şekir dikare bibe sedemeke alîkar ji bo çêbûn û peydabûna cureyên penceşêrê û mirov divêt bala xwe bidin qasê bikaranîna şekirê.

## Rojnamevanê Kurd û Endamê "RMMK"ê, Saman Resûlpûr Li Mehabadê Hate Girtin

Saman Resûlpûr, yek ji endamên Rêxistina Mafê Mirovan li Kurdistanê, roja yekşem, 27.07.2008'an, ji aliyê hêzên ewlekarî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê di mala xwe de hate girtin.



Saman Resûlpûr

Saman Resûlpûr, bi buxtana lidarxistina civînekê li Mehabadê, bona pêşîgirtin ji biryara îdamkirina Ferzad Kemanger û çalakên din ên mehkûmbûyî bi cezayê îdamê, hatiye girtin.

Hate zanîn ku Saman Resûlpûr, çalakê mafê mirovan û endamê "RMMK"ê, di pêwendiyeke kurt a telefonî tevî malbata xwe de, ew agahdar kirine ku ji bo girtîgeha Îdareya Ewlekarî a Urmiyê bona lêpirsînê, hatiye veguhastin.

Rêxistina Nûçegihanên Bêsînor daxuyaniyek weşand û girtina Saman Resûlpûr, rojnamevan û xebatkarê mafê mirovan ji aliyê hêzên ewlekarî ên Komara Îslamî şermezar kir û daxwaza serbestberdana bi lez a wî kir.



Ronak Sefazade

Her wiha Ronak Sefazade, yek ji çalakên Mafê Mirovan ku ji bo mafê jinan xebatê dike û nêzîk 9 mehan berî niha ji aliyê hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê ve li Sine hatibû girtin, roja 24.07.2008'an, seba êş û azara xurt a cismî ji bo nexweşxaneyeke derveyî zîndanê hate veguhastin. Piştî lêkolînên bijîşkî derket ku sedema êş û azara Ronake, çilkkirina rûviyên wê bûye.